*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd*
*di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî
www.agirimedia.org Hejmar (253) 05-05-2015 Buha (150) Tûmen

## Zulma rejîma Îranê, kedkar derxistin kolanan




**Di roja cîhaniya kedkaran a îsal de, xwenîşandan û nerazîbûnên berfireh ên kedkaran li Îran û Kurdistanê, bûye sedema vê ku Komara Îslamî serbarê anîna zext û givaşên cur bi cur bo ser çalak û rêxistinên kedkarî, hewla vê yekê bide ku xwastekên wan berevajî û nebaş nîşan bide.**

Her di vê derheqê de û roja Înî 2'ê Gulanê (11'ê Banemerê), bi hezaran kesî ji xelkê nerazî li ber deriyê awahiya "Xanêye Karger" a bajarê Tehranê Kom bûn, ku beşeke zaf ji wan, bona beşdarî di vê meşê de, ji bajarên din ên Îranê ve ber bi bajarê Tehranê ve hatibûn.

Bi vê çendê serhejmêriya meşên kedkarî di Îranê de vê yekê nîşan didin ku, ji heyva Adara sala 2014 (Xakelêweya sala 1393'an heya Nîsana îsal (Banemera îsal), 35 meşên nerazîbûnên kedkaran li hemberî parlemênta Îranê hatine lidarxistin, û eva jî geşekirineke berçav a meşên cur bi cur di Îranê de nîşan dide.

Her bi vê sedemê û di roja cîhanî a kedkaran de, girtiyên siyasî ên girtîgehên Mihabad û Zahidan û Recayîşehr a Kerecê, di daxûyaniyên cuda de, piştevaniya xwe ji qata kedkar di Îranê de ragehandin.

Eva di demekê de ye ku di çend rojên derbazbûyî de, û di bereberê roja cîhanî a kedkaran de, pitir ji 20 çalakvanên kedkarî ên weke Mehmûd Salihî û Osman Îsma'îlî ji aliyê hêzên ewlehî ên Komara Îslamî ya Îranê ve hetine binçavkirin û eva jî, ji aliyê çalakên kedkarî ve wekî "Zexta sîstimatîk a binyatên ewlehiyê" ên rejîmê hatine binavkirin.

**Birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ**

## "Hejmarek ji wan terorîstên ku di Herêma Kurdistanê de ne, û pêşmergeyên me teror kirine, em nas dikin".

»»» R: 4

**Lewha spasiya PDKÎ ji bo peykerteraşê kurd**

»»» R: 2



**Tirkiye; Rîsk û hêviyên HDP'ê**

»»» R: 6




**"Roja herî xweş a jiyana min, dîtina rêberê Şehîd Dr. Qasimlo bû...".**

»»» R: 8


Tebîbe Xosrewî

**Kedkarên erzan û bêdeng**

»»» R: 9



**Rojnamegerî di Rojavaya Kurdistanê de**

»»» R: 10



## Sergotar

# 1’ê Gulanê

**Nahîd Husênî**

Îsal jî wekî salên pêşînkedkarên welat di demekê de ber bi pêşwaziya ji 1’ê Gulanê roja cîhaniya kedkaran ve çûn ku siyasetên dijî kedkarî ên rejîma Îranê, texa hejar û desteng a welat xistin nav tengasiyan de.

Komara Îslamiya Îranê bi qedexekirina karê rêkxistinî û çalakiyên pîşeyî yên tex û qatên cur bi cur ên civakî, bi hemû awayekî hewl dide ku pêşiya serhildana daxwaziyên pîşeyî, aborî, siyasî û civakî bigre. Melayên deshilatdar, bazerganên ser bi besîc û Spaha Pasdaran, û fermandarên payebilind ên wan organên serkutkar û birêvebirên nawendên cur bi cur yên ser bi beyta Xamineyî dest bi ser pitir ji %80 ji dahat û sermiyana welat de girtine, û hilkişiyan û daketina bazara paşmayî ya %20 ji heyiyên welat çavdêrî dikin.

Bi berçav Komara Îslamiya Îranê şêwe yasayeke kar ya taybet bi xwe heye, ku ne digel yasayên kar û kedkarî ên carr di cîhan de yek digre, û ne jî bi tu awayî maf û berjewendiyên kedkaran misoger dike. Di yasayên Komara Îslamiya Îranê de, kedkaran mafên girevgirtin û xwenîşandanan tunînin, û nikarin bi awayekî rêkxistî derheq heqdest, şert û mercên kar, temenê karkirinê û çarçoveya jîngeha kar digel xwediyên kar de bikevin nav dan û standinan de, û daxwaziyên xwe di hemberî deshilata zal de bînin berbas.

Kêşeya ji vê yekê jî girîngtir ku cihê dilgiraniyê ye, eva ye ku zêdetir ji %25 ji hêza kar û zêdetir ji %40 ji texa ciwanên welat bêkar in. Hekî em karê demsalî, destfiroşî û ew şêwe karên ku nakevin çarçoveya wan karên ku dahata berdewam û cihê baweriyê hene, ji bazara kar derxînin, nîva hêza kar ya welat wê demê bê dahat e.

Di rewşeke bi vî awayî de, kedkarên welat û yên ku dikevin refa texên herî desteng ên welat de, û tu derfeta wan tuneye ku daxwazên xwe yên mirovî bixin ber basê, ew hatine neçarkirin ku cezaya tawanekê bikêşin ku di rastî de sûçdarên sereke karbidestên herî payebilind ên welat in.

## Lewha spasiya PDKÎ ji bo peykerteraşê kurd



**Kurdistan media: Nûnerê PDKÎ di binkeya pêwendiyan ya Hewlêrê, rêzdar Mihemed Salih Qadirî li bajarê Hewlêrê, ji bo rêzgirtin ji keda birêz Şoreş Ahî, lewha spasiya vê partiyê pêşkêşî wî kir.**

Li gora raporta malpera Kurdistanmedia, roja şemiyê 25’ê Nîsan 2015’an, Mihemed Salih Qadrî nûnerê PDKÎ li bajarê Hewlêrê serdana berhema wî ya nû kir.

Wî nûnerê PDKÎ herwiha hûnera Şoreş Ahî li ser çêkirina peykerê rêberê şehîdbûyî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê Dr. Ebdulrehman Qasimlo bilind nirxand.

Şoreş Ahî hunermendê peykerteraş, kurê şehîd Ebdulqadir Ahî, xelkê Mehabadê ye. Navborî heta niha li çendîn festîvalên hunerî di bajarên Kurdistan û Îranê de beşdarî kiriye.

Şoreş Ahî peykerê Dr. Qasimlo li ser daxwaza diya xwe çêkiriye.

## Koça dawî ya endamekî PDKÎ di bûyereke hatûçûnê de



**Kurdistanmedia: Sîrwan Heqanî endamê PDKÎ di bûyereke hatûçûnê de li ser rêya Mesîf-Hewlêrê canê xwe ji dest da.**

Li gora nûçegehaniyan, Sîrwan Heqanî kurê Ehmed xelkê bajarê Seqizê û jidayîkbûyê sala 1990 (1369)’an, û endamê PDKÎ şeva 27.01.1394 tevî hevjîn û zarokê xwe yê du salî li ser rêya Mesîf-Hewlêrê tûşî bûyereke hatûçûnê dibe.

Di vê bûyerê de, hevjîna wî û zarokê wî canê xwe ji dest dan, û Sîrwan jî piştî çend rojan di nexweşxaneyê de bi sedema birînên dijwar canê xwe ji dest da.

Sîrwan Heqanî sala 2007 (1386)’an endamê PDKÎ bûye, û di karûbarên partiyê de pirr çalak bû.
Termê Sîrwan Heqanî şeva pêncşemî Nîsana 2015 (02.02.1394)’an di nava goristana şehîdên PDKÎ de bi axê hate spartin.
PDKÎ sersaxiyê li malbat û kesûkar û dost û hevalên Sîrwan Heqanî dike, xwe di vê xemê de beşdar dizane.

## Roja xwendekarê Kurd hate pîrozkirin



**Kurdistanmedia: Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê bi boneya 12’ê Banemerê roja “Xwendekarê Kurd” cewleyeke leşkerî bi rê ve bir.**

Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê bi beşdariya endam û alîgirên xwe, roja 12’ê Banemerê bilind ragirtin, ku roja şehîdkirina Îsma’îl Şerîfzade xwendekarê Kurd e, ku navbirî bûye sembola tevgera xwendkarî ya Kurd.

Şehîd Îsma’îl Şerîfzade û hevalên wî di salên 1967-68 (1346-47)’an de, jib o rizgariya neteweya Kurd, li dijî deshilata rejîma paşatiyê di Îranê de, dest bi xebata çekdarî kirin, û piştî 18 mehan şerê qehremanane, di roja 12’ê Banemerê de hatin şehîdkirin.

Lewra Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê ew roj weî roja “xwendekarê Kurd” diyarî kiriye.

## Hejmara 474 ya Rojnameya Awêne, digel birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ gotûbêjek pêk aniye, ku eva jêr beşek ji vê gotûbêjê ye.






**Birêz Mistefa Hicrî: "Mixabin çi wekî Hikûmeta Herêma Kurdistanê, û çi jî wekî hêzên sereke yên Herêma Kurdistanê, wekî hewce alîkar nebûne ji me re.**

**Awêne: Gelo siyaseta YNK û PDK'ê di hemberî Îranê de, zext li ser Kurdên Rojhilat û hêzên siyasî ên wekî we pêk aniye?**

**Bersiv:** Heya niha em wekî xwe, wekî PDKÎ me ew zext hest pê nekiriye, em di Kurdistana Îraqê de li ser çalakiyên xwe berdewam bûn, me pêşmerge hebûne, û me kar û çalakiyên din jî bi rê ve birine, lewra tu astengiyek ji bo me pêk nehatiye, û em vê yekê jî dizanin ku Komara Îslamiya Îranê hinek caran zext bo partiyên di Herêma Kurdistanê de aniye, bona vê ku zexta li ser me zêde bikin, û astengiyan li ser riya kar û çalakiyên me çêbikin, lê em hest pê nakin ku di vê derheqê de zext li ser me hebe.

**Awêne: Gelo we hest pê nekiriye ku destêwerdana Îranê û mehtkirina berdewam ya Qasim Silêmanî, metirsî li ser we pêk aniye di Herêma Kurdistanê de?**

**Bersiv:** Bêguman, hertim metirsiya Komara Îslamiya Îranê li ser me heye. Çiqas deshilata Komara Îslamiya Îranê zêdetir be, metirsiya wê li ser me zêdetir e. Di bîra me hemiyan de ye ku çend salan berî niha hêzeke Komara Îslamiya Îranê hat, û ew kempa me bombebaran kir. Niha deshilata Îranê zêdetir bûye, û liv û tevgerên wê di herêmê de zêdetir bûne, lewra metirsiyên wê jî li ser me zêdetir bûne.

**Awêne: Gelo wekî PDKÎ di eniyên şerê li dijî DAÎŞ'ê de hûn beşdar in?**

**Bersiv:** Sala borî dema ku DAÎŞ'ê êrîş kire ser Giwêr û Mexmûrê, me bi Hikûmeta Herêmê ragehand ku em amade ne bergiriyê bikin, û li dijî DAÎŞ'ê şer bikin, û di destpêkê de razî bûn û me jî çend sed pêşmergeyek amade kirin, û şandin eniyên şer di wê herêmê de.

Lê mixabin piştî 24 demjimêran em agehdar kirin ku em hêzên xwe vegerînin!. Niha jî em radigehînin her demekê ku ew daxwazê ji me bikin, hêzên me amade ne ku alîkariya xûşk û birayên xwe bikin di eniyên şer de, û mil bi milê wan li dijî DAÎŞ'ê şer bikin.

**Awêne: Çima bi we ragehandin ku hêzên xwe vegerînin?**

**Bersiv:** Bi baweriya min, Komara Îslamiya Îranê daxwaz ji wan kir ku hêzên me bila di şer de beşdar nebin. Jiber ku beşdariya hêzên me di eniyên şer de, bi boçûna Komara Îslamiya Îranê dibû sedema vê ku dengvedana vê helwêsta me gellek zêdetir bibûya, û herwisa dibû sedma vê ku hêzên me yên pêşmerge ceribandinên zêdetir bi dest bixin.

Aliyê kêm ew pêşmergeyên me ku di şerê li dijî Îranê de beşdar nebûne, di vî şerî de wê hatibana perwerdekirin, lewra Îran bi vê yekê nerihet bû, ku em vê deskevta siyasî bi dest bixin. Lewra zext anî, da ku hêzên me beşdar nebin. Herwekî ku em hemû dizanin, dema ku bas ji pêşmerge tê kirin, di cîhanê de qehremantiya wî deng daye.

**Awêne: Gelo bi baweriya we, hêzên Herêma Kurdistanê di hemberî Rojhilata Kurdistanê de xemsar bûn?**

**Bersiv:** Belê, bi baweriya min, Hikûmeta Herêma Kurdistanê û hêzên siyasî yên herêmê derheq hêzên dijberê rejîmê di Rojhilata Kurdistanê de xemsar bûn, û bi baweriya min li gora hewce alîkarî jî bi wan re nekirine, Kurd her çiqas ku parvekiriyê dest zordariyê ye, lê em hemû yek netewe ne, û aliyê kêm kûrahiya stratejiya Kurdistana Îraqê dikare bibe kûrahiya stratejiya Kurdên parçeyên din, û hewce ye ku alîkariya wan bihê kirin, lê mixabin di vê derheqê de çi wekî Hikûmeta Herêma Kurdistanê, û çi jî wekî hêzên sereke yên Herêma Kurdistanê, wekî hewce alîkar nebûne ji me re.

**Awêne: Li gora çavdêrî û ezmûna we, gelo we jêve ye ku avakirina Heşdê Şe'ibî, wekî Spaha Pasdaran û Besîc ji bo pêşeroja Îraqê û pêşeroja Kurdistanê metirsîdar e?**

**Bersiv:** Bêguman, me jêveye ku avakirina hêzeke bi vî rengî û perwerdekirina wan, û dana çekan bi wan, û birêvebirina wê hêzê ji aliyê fermandarên leşkerî yên Îranê ve, ji bo pêşeroja Kurdistan û Îraqê gellek metirsîdar e, ku ew yek jî nîşan dide ku Komara Îslamiya Îranê ne tenê di biyavê siyasî de, belkû di biyavê leşkerî de jî, destêwerdanên xwe di herêmê de zêde dike, û herwisa Heşdê Şe'ibî jî herwekî ku me bihîstiye, di wan ciyan de ku şer

Dom R:6

# Kurtiyek ji gotûbêja Kovara Sivîl bi birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ re, derheq hinek pirsên girîng yên herêmî û yên girêdayî bi PDKÎ (beşa 1)

**Birêz Mistefa Hicrî:**

## "Hejmarek ji wan terorîstên ku di Herêma Kurdistanê de ne, û pêşmergeyên me teror kirine, em nas dikin".



**Sivîl: Yek ji wan rexneyên ku li PDKÎ tê girtin, eva ye ku keysa wan 250 kadran ku di salên 90'î de bi destên Komara Îslamiya Îranê hatin terorkirin, di dadgeheke herêmê de, yan jî di dadgeheke navdewletî de, we nekariye li dijî Îranê bi kar bînin?**

**Bersiv:** Piraniya wan bûyeran ku hatin pêş, demekê bûn ku hêşta Hikûmeta Herêmê pêk nehatibû, di heyama di navbera paşekêşeya hêzên Sedam Husên heya pêkhatina Hikûmeta Herêma Kurdistanê, di vê heyamê de hejmareke zaf ji kadr û pêşmergeyên me, û rêkxistinên din ên siyasî ên dijberê Îranê hatin terorkirin.

Wê demê tu deshilatek nebû, ku vê pirsê bişopîne, hêzên siyasî jî renge bi sedema vê dijberiya ku digel yektir hebûn, bi taybetî YNK û PDK, nexwastin yan jî nekarîn bi awayê hewce vê erka li ser milên xwe cî bi cî bikin, û wan terorîstan bişopînin û wan bibînin, û wan ceza bikin.

Jiber ku ew terorîst her hemû jî diyar e ku ji aliyê Komara Îslamiya Îranê ve têne rêkxistin, û em jî xeynî Komara Îslamiya Îranê, tu kes û aliyekî din wekî neyarê xwe nahesibînin, û derheq wan kadr û pêşmergeyên terorkirî de jî, dibe belge bi awayekî bin ku di dadgehê de bêne qebûlkirin, ew belge di ber destên me de nînin. Rast e ku em beşeke zêde ji wan terorîstan nas dikin, lê belgeyên yasayî di ber destên me de nînin, da ku em bikarin wan radestî dadgehê bikin, û aliyê din jî haşayê dike, lewra eva di dadgeheke navdewletî de nahê kirin.

**Sivîl: Lê aliyê kêm di ragehandinan de wê dengvedan hebe, ku dosiyeya terorkirina bi sedan kesî li dijî Komara Îslamiya Îranê hatiye ber basê?**

**Bersiv:** Di kom û civînên navdewletî de, û digel wan welatên Rojavayî ku me pêwendî bi wan re heye, hertim me bas ji vê pirsê kiriye, lê heya niha wekî keyseke yasayî me nedaye tu dadgehekê.

**Sivîl: Tu yek ji wan terorîstên ku hûn dibêjin hûn hejmareke wan nas dikin, di herêma Kurdistanê de mane, ku bi azadî bigerin û lêkolîn jî bi wan re nehatibe kirin?**

**Besiv:** Belê hene.

**Sivîl: Hene ku di pêgeha deshilatê, yan serkirdayetiya partiyan de bin?**

**Bersiv:** Tak û tak di pêgeha deshilatê de jî hene.

**Sivîl: Heya niha jî metirsiya wê terorê li ser kadrên we her maye?**

**Bersiv:** Ew metirsî tu carî li ser me nereviyaye, lê niha ku terorên din bi rê ve neçûne, du sedemên wê hene, yekem: Em bi xwe di rabin û rûniştinên xwe de gellek hişyar in, û ya duyem:

Komara Îslamiya Îranê jî ku niha hatiye vêdedan, berbirûyê arîşeyên siyasî ên mezin bûye, renge heya niha bi hewce nezanîbe, ku dirêjiyê bide terorên xwe, lê qet dev ji vê yekê bernedaye ku sîxoran bişîne nav me de, û kêşeyan me re pêk bîne, û zanyariyan kom bike. Renge di demek din de, ku di warê siyasî de, bi xwe bi baş bizanin, karê terorîstî jî dest pê bikin.

**Sivîl: Reformxwazên Kurd di Îranê de hûn çawa dibînin? dawî car, helwesta wan dibe bergirî ji Komara Îslamî, yan bergirî ji mafê Kurdan?**

**Bersiv:** Bi baweriya min reformxwazên Îranê bi giştî û yên Kurd bi taybetî li pey kumê babirî ketine. Ya ku niha gellek eşkere ye, reform yek ji taybetmendiyên hikûmeteke demokratîk e, di wir de ye ku reform tê pêş, niha ku kêm û kasiyek heye, û xelk zextê tîne, bi xwe de diçe, û dizane ku şaşiyek kiriye, şaşiya xwe sererast dike, û pêngav bi pêngav diçe pêş, eva reform e.

Lê di welatekî de ku yasayên xwe wekî yasayên esmanî dihesibîne, jêve ye ku yasaya herî tewaw e di cîhanê de, û çavkaniya wê jî şerî'eta Îslamî ya wilayeta feqîh e, di wî welatî de çawa dikarî reformon bikî?

Herwekî hûn dibînin di heyama 36 salên borî de, di rejîma Îranê de hekî guhertinek hatibe kirin, ew guhertin ber bi paş ve bûye, û roj bi roj jî tundûtîjtir bûye.

Bo mînak di dema hilbijartinan de soz didin ku wek çawa di dawiya hilbijartinan de, Hesen Rûhanî hat û gellek soz dane Kurd û xeyrî Kurdan, lê li gora serjimêriyên cîhanî, û yên wan bi xwe jî, hejmara bidarvekiriyan di wê heyamê de, ji ya Ehmedînijad zêdetir bûye.

Ew rejîma di rastî de jêve ye ku her tiştî dizane, û weliyê feqîh xwe wekî Îmamê zeman dihesibîne, û hatiye girêdan bi esman ve, tu çawa dikarî qise li ser qiseyên kesekî wisa bikî, yan tiştekî bêjî ku ji ya wî baştir be?! Lewra sîstemên bi vî rengî reformanhilnagrin.

**Sivîl: Di xwendina pirtûka we de "Nisko û Dabiran" te bêhêvîtiyeke zaf heye, ku rojekê ji rojan rejîma Îranê qebûl bike ku kêşeya Kurd bi awayekî aştîxwazane çareser bike, te çi hêviyek heye ku bi awayekî aştîxwazane rojekê ji rojan digel Komara Îslamiya Îranê hûn li ser mafê Kurdan li hev bikin?**

**Bersiv:** Ya ku min bas kiriye, ji rûyê bêhêvîtiyê ve nine, di vî warî de ye ku xelk wekî reformxwaz li benda wê nebin ku rejîma Îslamiya Îranê maf û azadiyeke herî kêm jî bide xelkê Îranê, lewra bila hêza xwe kom bikin ji bo herifandina vê rejîmê. Ji ber ku hekî rejîm bimîne, tu egerek tuneye bo reformê û dana mafê Kurdan û pêkhateyên din.

Wê hikûmetê bawerî bi tiştekî nine bi navê mafê Kurd û Ereb û Belûç û pêkhateyên din. Wan axûndane gellek baş derûnnasiya xelkê Îranê nasîne, û dizanin ku xelk çiqas dijî wan in, û kerbê wan ji rejîmê vedibe.

Lewra baş dizanin ku hekî kêmtirîn azadî û derfet bi wan bihê dayîn, êdî hikûmeta wan namîne. Valahiya di navbera xelkê Îranê û rejîmê ew qas berfireh bûye ku êdî niha nahê tejîkirin, û bawewrî di navbera wan de nemaye.

Lewra min li ber bêhêvîtiyê ew yek negotiye, lê dibêjim ku xelk bedela vê ku

Dom R:6

# Tirkiye; Rîsk û hêviyên HDP'ê



Ebdullah Hicab

Partiya Demokratîk a Gelan (HDP), bi armanca ku benda %10 hilbijartinê li Tirkiyê derbas bike, bi berçavgirtina rîskek cidî pê avêtiye pêvajoya hilbijartina 7'ê Hezîranê. Hevserokê genc yê partiyê, Selahedîn Demîrtaş di hilbijartina serkomariyê de, kete rikeberaniya siyasetvanê bi îqtidare AKP'ê Erdoxan, û karî rêjeya dengên partiya xwe bigihîne nêzîkî benda diyarîkirî. Wê pêşveçûnê hêviya HDP'ê ji bo ku benda hilbijartinê derbas bike zêde kir û hêvî da partiyê ku li ser navê xwe bikeve hilbijartinê.

Di hilbijartinên pêşîn de, partiyên ku HDP li ser bingeh û keda wan hatiye damezirandin, herî zêde %6.5 ji dengan bi dest dixistin. Lê li gor anketên ku heya niha navendên cuda yên rapirsiyê li Tirkiyê belav kirine, dengên HDP vê carê di navbera %8 heya %11.5 de ye. Hekî şaşitî û hûrdekariyên metodîk bihesibînin û dengên hin dengderên ku hêj biryara xwe nedane li ber çav bigrin, xuya ye ku dengên ji bo HDP hêj di navbera %9.75-%10.25 de hildikişe, û dadikeve. Lewma partî hesabek cidî li ser dengê dengderên li derveyî welat, kesên ku tev li siyaset û pêvajoya hilbijartinan nabin, û jinên kabanî dike, û bi hêvî ye ku wê carê wan jî tevlî hilbijartinê bike. Armanca HDP'ê bi rengek xweşbînane %11-%13 dengan e.

Weke xuya ye, HDP'ê ji bo hilbijartina îsal, hin rexneyên ku heya niha jê dihat girtin û li gor wan partî li ser dîtinek teng û rêbazek girtî siyasetê dike, li berçav girtiye. Li ser wê hesabê, heya radeyekê li gor daxwazî û rengên cuda yên di nava civakê de pê avêtiye qada hilbijartinê. Berendamên wê carê yên HDP'ê ji qad û beşên cuda yên civakê tên. Ji oldar û mamostayên zankoyan re bigre heya çepgir û kêmayetiyên siyasî, civakî, etnîkî û olî, ji welatparêzên lîberal re bigre heya înternasyonalîstên radîkal û jin û ciwanan, deng û rengên cuda, di wê hilbijartinê de ciyê xwe di nava HDP'ê de digrin. Lê dîsan jî tirsa hindê heye ku ev partî benda %10 hilbijartinê derbas neke û bi durişm û daxwaziyên xwe ve li pişt deriyê parlemanê bimîne.

Di wan salên dawî de, rewşa siyasî ya Tirkiyê bi guhertinên bingehîn re rû bi rû bûye. Hin hêviyên ku beriya 10 salan bi tenê di xeyalan de cîh digirtin, niha ketine jiyanê. Lewma niha derî û derfetên siyaseta yasayî an legal li Tirkiyê ji caran zêdetir vekirîne. Lê ev nayê wê manayê ku pêvajoya siyasî bê astengî ye û deng û rengên cuda dikarin bi azadî xwe di civak û siyaseta Tirkiye û Bakûra Kurdistanê de îfade bikin. Di gel vebûna siyasî, hêj derfetên wekhev ji bo siyasetê nînin, hêj mediya deshelatê bi awayê yekalî rojevê diyarî dike, û siyaset li bin sîvana zêhniyeta înkarkerê derneketiye. Ji ber wê hindê, hêj mirov nikare bi tewahî baweriya xwe bi pêvajoya demokratîk ya hilbijartinê bîne.

Serbarî wê hindê, hilbijartina parlemanê derfetek zêrîn e heya ku pirsa neteweyî li Bakûra Kurdistanê, mijara aştiyê û vekirina derî bi ser siyaseta demokratîk de bikeve rojeva civak û siyasetê. Ji ber ku hem li gor çavdêriyên rojane û hem li gor rapirsiyên beriya hilbijartinê, mijara sereke ji bo hilbijêran li Bakûra Kurdistanê aştî û ewlekariya civakî bi riya çareserkirina pirsa neteweyî ye. Ev mijar jî pêwîste bi awayek xwezayî daxwaziya sereke ya HDP'ê be.

Li deverên din yên Tirkiyê, mijarên din di rojevê de ne. Pitir ji %15 civaka Tirk, hêj li ser rêbazek teng ya regezperestiyê dimeşe û alîgiriya siyaseta zêde tundajo ya Partiya Tevgera Neteweperest, MHP'ê dike. Li gor hin anketan, ne dûr e ku MHP %18 dengan bîne. Di rêza duyê ya rêjeya dengderan de, Partiya Komariya Gel (CHP) tê, ku tê payîn %25 heya %28 dengan bi dest bixe.

Ji bo wê partiyê û dengderên wê, pirsa abûrî, îlmaniyet an layîkbûn û rêbaza kemalîzmê, beriya hemû pirsan tê. Ev partî, ji kemalîstên serhişk re bigre heya sosyaldemokratên layîk û beşa xwendewar û arîstokratên welat digre nava xwe.

Di hilbijartina vê carê de jî xuya ye ku serokê bê reqîb ê siyaseta Tirkiyê hêj Erdoxan e. Serkomarê bi xwe bawer ê Tirk, bi vîzyona ku di sed saliya Tirkiyê de li sala 1923'an de, ciyê pê û navûdengê xwe di dîroka welat de qeyd bike, ji wê rojê ve ku serokatiya belediya Stenbolê girte destê xwe heya niha, serketin li pey serketinan ji bo xwe û partiya xwe bi dest dixe. Partiya Edalet û Pêşketinê bi hêvî ye ku %50 dengan pitir bi dest bixe. Renge ev rêje, xeyalek geşbînane be ku AKP nekare bixe jiyanê, lê ne dûr e ku ew partî tiştek di navbera %39 heya %45 dengan de bi dest bixe.

Parsenga di navbera wan hêzan de, pêşbirka siyasî û dengvedana daxwaziyên cuda, wê bi awayekî bandorê li siyasetê bikin ku rê ji bo derfet û îmkanên nû veke. Ji ber wê çendê, pêvajoya hilbijartinê, pêvajoya herî giring a siyasî ya Tirkiyê û Bakûra Kurdistanê ye.

Heya niha li Bakûra Kurdistanê, ji bilî HDP'ê tu leyîzvanê din yê cidî yê siyasî di qadê de nînin. Di wê rewşê de pirsa sereke ev e ka gelo HDP wê bikaribe raya giştî li Kurdistanê bi xwe re bike yek?

Di wan çend salên dawî de, AKP reqîbê sereke û renge tenê reqîbê HDP'ê bûye. Wê partiyê di wan çend salên dawî de, bi her awayî be, hin kodên civaka Kurdistanê bi dest xistine, heya ku bikare bala beşeke zaf ji xelkê bo aliyê xwe bikêşe. AKP deshelat, û tex û qatên civakê bi kar tîne heya ku serdestiya xwe ya siyasî li Kurdistanê biparêze. Lê weke tê berçav, ji bilî wan emrazan, AKP'ê hin hevpeymanên xwedî bandor jî di nava civaka Kurdistanê de ji xwe re dîtine. Berendamên wê partiyê zimanê civakê û kevneşopiya deshelatdar ji bo parastina statûya berê bi kar tînin, û heya niha di wî karê xwe de serketî bûne.

Lê di hemberî wê reqîbê bi bandor de, tevgera Kurd weke tê hêvîkirin, heya niha nekariye hemû potansiyela civakê li dijî sîstema serdest bixe nava tevgerê. Hêj zêdeyî niviya deng û şiyana civaka Kurd hem li Bakûra Kurdistanê û hem li metropol û bajarên Tirkiyê xwe ji tevgera Kurdî bi dûr digre.

Beşek ber bi çav ji wê şiyana siyasî di xizmeta AKP'ê û partiyên sîstemê de ye, lê beşa herî zêde ji wê şiyanê, baweriya xwe bi siyaseta kurdî an pêşengên siyaseta kurdî nayîne.

Yek ji pirsgirêka sereke yên HDP û tevgera siyasî ya Kurd li Bakûra Kurdistanê ev e ku li qada sereke ya têkoşîna xwe de, ku Kurdistan e, nekariye baweriya vê beşa civakê ku girêdayî pîvanên kevnare yên civakê ye bi dest bixe. Lewma li hin deverên Kurdistanê piranî û li gellek deveran jî beşek di navbera %35 heya %45 civakê hêj dengê xwe nade tevgera Kurd. Ew deng bi hêsanî diçin bo AKP'ê.

Kêmasiya din ya HDP'ê ev e ku, bi



Birêz Selahedîn Demîrtaş hevserokê HDP'ê

hêviya qazanckirina hin dengên çepgir û cudabîrên Tirkiyê, pirsa neteweyî ku bingeha hebûn û vegeşîna wê ye kêmreng dike. Ji ber wê hindê, hêj tirsa hindê heye ku ev partî nekare li hin deveran rikeberatiya AKP'ê bike.

Beşek ji durişmên tevgera kurd li Bakûrê Kurdistanê, ne di asta hêvî û daxwaziyên gelê kurd de ne.

Hin daxwazî û durişmên utopîk, hin dîtin û nêrînin felsefî ku ji realîteya jiyanê bi dûr in û modêlek siyasî ku çareseriyê bi awayê mutleq, weke ku gotin pê nevê bi tenê di nêrînên xwe de dibîne, wê tirsê zêde dike ku demokrasî û daxwaziyên xwezayî di civakê de bibin qurbaniyê îdeolojiya hişk. Ev nêrîn riya beşdarî kirina berbelav di tevgera kurdî de asteng dike û pêvajoya vebûnê dixitimîne.

Di gel wan têbînî û rexneyan, dîsan jî çavê gelê Kurd li Bakûrê Kurdistanê û demokrat û guhertinxwazên Tirkiyê li HDP'ê ye. Ji ber ku xurtbûna HDP'ê, wê alîkar be ku ev partî vegere ser eslê xwe û zêdetir bi daxwazî û hêviyên xelkê ve bê girêdan. Ji ber wê hindê serketina HDP'ê, tê wê manayê ku parlemana Tirkiyê wê bibe qada herî xurt ya xebata siyasiye gelê kurd li Bakûrê Kurdistanê.

Dema HDP ji benda 10% derbas bibe, wê hejmara parlementerên partiyê herî kêm 56 kes be. Eger bê û AKP jî nekare pitir ji 45% dengan bîne, wê

**Kêmasiya din ya HDP'ê ev e ku, bi hêviya qazanckirina hin dengên çepgir û cudabîrên Tirkiyê, pirsa neteweyî ku bingeha hebûn û vegeşîna wê ye kêmreng dike. Ji ber wê hindê, hêj tirsa hindê heye ku ev partî nekare li hin deveran rikeberatiya AKP'ê bike.**




demê wê fraksyonek 50-60 kesî ya HDP, ne tenê ji bo çareserkirina pirsa kurd li Bakûrê Kurdistanê û Tirkiyê, belkû ji bo tewaiya siyaseta welat bibe leyzvanek bi bandor.

Niha pirs ev e ku heke hat û partiyê benda hilbijartinê derbas nekir, gelo wê demê wê rewş çavan be?

Bersiva wê pirsê wê dema pêşiya me bide. Ya ku xuya ye ev e ku partiyek ku li Bakûrê Kurdistanê bikare piraniya dengên gel bi dest bixe, çi bikeve parlemana Tirkiyê çi nekevê, wê xwedî bandorek wisan be ku deselata li Ankara nekare bêy wê pêgavek cidî di siyasetê de bavêje.

Ji aliyek din ve, eger deriyê parlemanê bi ser kurdan de hate girtin, renge dema hindê jî bê ku hizra ava kirina kantonan û parlemanek herêmî ji bo Bakûra Kurdistanê pêgavekê ji armanca xwe nêzîk bibe.

---

**Doma R:3**

kirine, bi xwe bûne sedema kuştar û kavilkirinê, ku ew yek jî pilanek e ku Îran ji bo Îraqê cî bi cî dike.

**Awêne: Pirsa Kongireya Neteweyî gihîşte ku derê, bas ji vê tê kirin ku Ocalan razî bûye bi vê ku Barzanî serokatiya Kongireya Neteweyî bike?**

**Bersiv:** Di rastî de, digel vê ku em hatibûne civînekê ku derdora du salan berî niha ji bo rêkxistina Kongireya Neteweyî pêk hat, û nûnerê me jî, di karûbarên pêşvebirina pêkanîna Kongireya Neteweyî de beşdar bû, her wê demê me dizanî ku ew kongire ser nagire, bi sedema vê ku pêwendiya di navbera hêzên Kurd de gellek baş nebû, lewra kongire ser negirt, û niha jî bi sedema vê kêşeyê û dubendiya di navbera hêzên Kurd bi giştî, û bi taybetî PKK û PDK ji aliyekî ve, û ew kêşe û nexweşiya di navbera PDK û YNK'ê heya niha jî nehatiye çareserkirin, lewra bi baweriya me, hewldan bo lidarxistina Kongireya Neteweyî niha bêçine ye.

Hekî di demeke wisa de bê pêkanîn jî, wê demê dibe kongireya partiyekê ku tu berjewendiya wê ji bo Kurdan tunabe. Herwisa ew yek dibe emrazek ji bo partiyekê ku armancên xwe ber bi pêş ve bibe.

**Awêne: Hûnê rêzdar wekî sekreterê PDKÎ û wekî kesayetiyekî xwedî ceribandin, heya çi qasî razî ne bi guherînkariyan di posta serokatiya Herêmê de, yan jî berevajî mana Barzanî di vê postê de?**

**Bersiv:** Bi bê vê ku em razî bin yan dij bin, bi baweriya me dibe ku destûra Hikûmeta Herêma Kurdistanê çi riyekê bide, vê hilbijêrin, wate riyeke yasayî be, lê guman jî tê de nine ku di rewşa niha de, Herêma Kurdistanê berbirûyê komek arîşeyan bûye. Ji aliyekî ve û digel Bexdayê heya niha jî nekariye ku kêşeya wan dorpêçên aborî ku bi ser wan de sepandine çareser bike, û ji aliyekî din ve jî berbirûyê şerê DAÎŞ'ê bûye, herwisa ew kêşeya ku di navbera hêzên siyasî de heye, ji bo diyarîkirina serokê Herêmê jî, hekî bibe kêşeyeke din, eva ne di berjewendiya Kurd de ye, lewra bi baweriya min, dibe ku bi riyeke yasayî, û bi lihevkirina hemû aliyane, bikarin vê pirsê çareser bikin. Vê demê li gora vê yasayê kî dibe serokê Herêmê, em pîrozbahiyê ji wî dikin, û her ji niha ve jî, hêviya serkevtinê jê re dixwazin.

---

**Doma R:4**

bi navê reformê ve hêz û şiyana xwe bi vî awayî xerc bike, û here girtîgehê, dibe ku hêzên xwe kom bike û xwe bi rêkxistin bike, bona vê ku vê hikûmetê biherifîne, hekî dixwazin ku bigihîjin azadiyê.

**Sivîl: We çima TISHK TV dixist? Li ber nebûna şiyana darayî bû, yan nebûna kadirên ragehandinkar ên hewce?**

**Bersiv:** Ew yek bi sedema kêşeya darayî bû, li ber nebûna têçûya kanalê bû, heya wê demê ku me bawerî tunebe ku em bikarin bi awayekî aştir berdewamiyê pê bidin, renge ew kanal dest bi kar nebe, ceribandina pêşîn şaşî tê de hebûn, lê vê carê ceribandinên me baştir dibin.

Di hember vê yekê de emê hewl bidin wan ragehandinên xwe yên din wekî malperên xwe bihêztir bikin.

**Sivîl: Encama karê wê lêjneya ku hatibû pêkanîn ji bo lêkolîna li ser bûyera êrîşa li ser kempa we, ji aliyê polîs û asayişa Koyê ve, çi lê hat?**

**Bersiv:** Em jî her çavnihêrê encama wê ne, ji ber ku wê demê hevalên lêjneyê hatin cem me, û gotin ku wê lêkolînê bikin û tawanbaran wê ceza bikin, lê gotin dem hewce ye heya ku lêkolînên me digihîjin encamê. Heya niha encama wê bi me ranegihandine.

**Sivîl: Tu hêviyek bi vê lêjneyê heye ku encamek hebe, yan wekî lêjneyên din e ku bo ji bîrkirina kêşeyan tê pêkanîn?**

**Bersiv:** Di rastî de em heya niha jî her hêvîdar in ku ew keysa bi vî rengî nebe, û em bêhêvî nebûne.

# Nerîna Lîderan


Corc Bûsh

“Şêweya îdarekirina cîhanê ji aliyê Obama ve ne bi dilê min e”.


Husnî Mubarek

“Ji El-sîsî piştevaniyê bikin, û digel erteşa Mîsrê bin”.


Demîrtaş

“HDP ne li dijî ola Îslamê ye, davûdoxlo sivikatiyê bi me dike”.


Qilîçdar Oxlo

“Hekî em bibin deshilatdar, emê tenê bi HDP’ê re li ser pirsa Kurd gotûbêjê bikin”.

## jiber ku gotibûn “kurd ne kafir in” hatin kuştin!

**DAÎŞ’ê komek çekdarên xwe yên biyanî, bi hêceta ku gotine “kurd kafir nînin” komkuj kirin.**

Çavkaniyekî ji bajarê Mûsilê ji Rûdawê re got, 18 çekdarên DAÎŞ’ê ku hemû Pakistanî bûn, ji eniya şer reviyabûn, lê 16 ji wan li ser sînorê Sûriyê ji aliyê DAÎŞ’ê ve hatibûn girtin. Wî çavkaniya Rûdawê da zanîn, ew çekdar li Mûsilê hatin komkujkirin.

Li ser sedema reva wan çekdaran jî wî jêderî got, dema ew tevlî DAÎŞ’ê bibûn ji wan re hatibû gotin ku “kurd kafir in û peyayên Îsraîlê ne”, ji ber wê jî qebûl kiribûn ku şerê kurdan bikin.

Wî jêderî ku nexwast navê wî were eşkerekirin, her wiha got, lê dema ew çekdar li devera Kerkûkê li nav gundên Kurdan de dibînin ku mizgeft hene û pêşmergeyên dîl nimêjê dikin û dema ji aliyê DAÎŞ’ê ve tên şehîdkirin jî şehadetê tînin, dizanin ku Kurd ne kafir in, lewma êdî naxwazin şerê Kurdan bikin û dixwazin vegerin welatê xwe, tenê 2 ji wan rizgar dibin, yên din hemû têne girtin û komkujkirin.



## Bi sedan Êzidî çend roj berî niha hatin komkujkirin!



**Parêzgarê Mûsilê Esîl Nucêfî eşkere kir ku li Mûsilê bi sedan Kurdên Êzidî ji aliyê çekdarên DAÎŞ’ê ve hatin komkujkirin.**

Esîl Nucêfî, ku ji roja girtina Mûsilê ji aliyê DAÎŞ’ê ve li Hewlêrê dijî, di rûpela xwe ya Facebook’ê de ragihand, îro (1’ê Gulanê) li Mûsilê bi sedan Kurdên Êzidî yên ku ji meha Tebaxa par ve di destên DAÎŞ’ê de ne, ji aliyê çekdarên wê rêxistinê ve hatin komkujkirin.

Nucêfî herwiha gotiye, çekdarên DAÎŞ’ê carekî din nîşan dan ku mirov nînin û ji Xwedê jî natirsin.

Piştî ku devera Şingalê roja 3’ê Tebaxa par kete destên DAÎŞ’ê de, bi hezaran Kurdên Êzidî ji aliyê çekdarên wê rêxistinê ve hatin revandin ku piraniya wan jin û zarok bûn.

## NY: Nabe yên ku dewleta wan tuneye, bêne çekdarkirin

**Netewên Yekbûyî ragihand, ew ji dayîna çekan û çekdarkirina hêz û aliyên cuda yên Îraqê yên ku “dewleta wan nîne”, dilgiran in.**

Alîkarê Berdevkê NY Ferhad Heq ji Rûdawê re got, em ji dayîna çekên zêde bo wan hêzên ku ne dewlet in, dilgiran in. Jixwe nûnertiya NY li Îraqê beriya niha nerazîbûna xwe li ser vê yekê nîşan dabû.

Ferhad Heq anî ziman ku NY bi giştî li dijî wê ye ku alî û hêzên Îraqî yên ku di şer de ne, zêdetir werin çekdarkirin û wiha got: “Tirsa me zêdetir ji ber vê yekê ye ku mafên mirovan bêne binpêkirin.”

Wî rayedarê NY bang li hêz û aliyên Îraqî kir ku di şerê DAÎŞ’ê de bibin yek, û wiha anî ziman:

“Tişta girîng ew e ku her hêz û aliyek hurmeta mafên mirov bigire, û arîşeyên mesebî zêde mezin nebin. Divê li Îraqê her kes wisa hest bike ku beşek ji Îraqê ye.”

Ev helwesta NY heta astekî li dijî helwesta fermî ya wê saziyê ye, derheq şerê li dijî DAÎŞ’ê, çimkî Konseya Ewlekariyê ya NY beriya niha piştgiriya xwe ji hêz û aliyên ku şerê DAÎŞ’ê dikin, nîşan dabû.

Ew çek û alîkariyên leşkerî yên ku ji



derve ji pêşmerge re tên şandin, destpêkê diçin Bexdayê û ji wir jî radestî Herêma Kurdistanê têne kirin, lê rayedarên Başûra Kurdistanê dibêjin, bila ew çek yekser derbasî Herêma Kurdistanê bibin, Bexda jî vê yekê qebûl nake.

## Birêz Tebîbe Xosrewî : "Roja herî xweş a jiyana min, dîtina rêberê Şehîd Dr. Qasimlo bû di roja derbazbûna me di kêmyabarana bajarê Helebçê de".



**H: Arif Vêlzî**

Bi dirêjahiya dîroka Kurd û Kurdistanê, hertim dagîrker û dijminên gelê Kurd û axa pîroz a Kurdisatanê hewil dane ku bona bi koleyî hêlana Kurdan, siyaset û mêtoda fetisandina di Kûrahiya nezaniyê de bi kar bînin, û mixabin bi salan di wê pîlana xwe ya qirêj de serkevtî bûne, lê em dibînin ku xincî rola sereke ya partiyên pêşkevtinxwaz û li serveyî hemûyan PDKÎ ku di vê pêxemê de bandorek zaf bona pêşxistina tak û civaka Kurdistanê ji xwe bi cih hêlaye, lê jinên di nava şoreşê de jî, di çend dehikên derbazbûyî û di nava refên pêşmergên PDKÎ de xwedî bandorek berçav bûne, û di perwerdekirina nifşa nû ku pêşeroja welatê xwe dineqişînin, rola herî sereke dîtine.

Rêzdar Tebîbe Xosrewî jî yek ji wan jinan e ku serbarê zehmetiyên di nava şoreşa Kurd û Kurdistanêl de, bi perwerdekirina dirust û dislozane ya zarokên xwe, hewla derbazbûn ji pîlana dijminên Kurdan, ku heman fetisandina di kûrahiya nezaniyê de ye daye, û eva jî bi xizmetek girîn û mezin û xwedî buha tê hesibandin.

Tebîbe Xosrewî keça Mihemed di heyva Pûşpera sala 1968'an(1347), li gundê Pîromeran a ser bi dewera Gewirk a bajarê Seqizê, di malbatek niştimanperwer de hatiye dinê.

Tebîbe Xosrewî derheq bi çavaniya nasyarî tevî PDKÎ û şoreşa Kurdan weha ji Agiriyê re dipeyive: "Nasyariya min tevî PDKÎ, vedigere bo despêka pêkanîna jiyana min ya hevpar tevî Tahirê hevjînê min. Jiber ku min di sala 1979'an (1357) de jiyana hevpar ava kir, û eva jî hevdem bû tevî serhildana şoreşa gelên Îranê û hatina pêşmerge bo kûrahiya axa Kurdistanê, û devera me.

Her eva jî bûye sedem ku di heman salî de Tahîr bibe pêşmergê PDKÎ, û bi vî awayî me jiyana nava şoreşê hilbijart, û heya niha jî bê sekinîn li ser jiyan û şoreşa xwe berdewam in.
Berhema jiyana me ya hevpar jî kurek bi navê Rêbwar û 4 keç bi navên Gulale û Helale û Nermîn û Niyan e ku niha di bin mezinahiya siya PDKÎ û ked û şevnixûniyên xwe de, pê gehiştine, û xwediyê bawerînameyên qonaxên bilind ên xwendinê ne".

Tebîbe Xosrewî piştî derbazkirina piraniya temenê xwe ku zêdetir ji 35 salî dike di nava xebata siyasî a PDKÎ de, çavnihêrî û nêrîna xwe derheq bi partiya xwe weha tîne ziman: "Min her di despêka tevlîbûna xwe bi refên PDKÎ ve heya niha, hertim şanazî bi rêbaza paretiya xwe kiriye, û niha jî dikim, herçend di vê pêxemê de êş û zehmetî û nerihetiyên zaf hatine ser rêya min û neçar mame ku dûriya xizm û kesûkar û niştimana xwe qebûl bikim, lê serbarê wan hemû nexweşî û astengan, hêvî bi pêşeroja gelê me, hertima bûne sedem ku tenê bo bîstekê jî, ji partiya xwe û xebataê dûr nekevim.

Herweha çavnihêriya min ji hevjînê min jî ev e ku her weke heya niha li hember daxwazên take kesî û heta zext û givaşên Komara Îslamî de bi çok de nehatiye, berdewamiya li ser xebatê, bike armanca pêşeroja xwe, û malbata xwe, û vê yekê jî weke dersekê ji boyî zarokên xwe veguhêze û ji partiya xwe jî çavnihêrî dikim ku li ser rêbaza şehîdan berdewam bimîne, û bi curekê pêzanîna xwe derheq zehmetiyên kadr û pêşmergên xwe nîşan bide.

Helbet eva ji xalek girîng e û gerek PDKÎ bi awayekî berdewam agehdarî rewşa malbatên şehîdan û girtiyên xwe ên siyasî be, ku niha di bin siya rejîma xwînmij a Komara Îslamî de ne".

Tebîbe Xosrewî roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman: "Jiyana min ya siyasî pirr e ji xweşî û nexweşî. Lê roja herî xweş a jiyana min, dîtina rêberê Şehîd Dr. Qasimlo bû di roja derbazbûna me di kêmyabarana bajarê Helebçê de. Wê rojê hate pêşiya me, û li bajarokê Zereyanê civînek ji xelkê derbazbûyê re pêk anî. Eva roja herî xweş a jiyana min bû, jiber ku di rexekê de min rêberê xwe yê navdar dît, û ji rexek din ve piştî çend roj a şevan rêçûna di nava şer û topbaranê de, em ku pitir ji 700 kadr û pêşmerge û malbatên PDKÎ bûn, derbz bûn û cardin gehîştin partiya xwe.

Tebîbe Xosrewî herweha roja herî nexweş a jiyana xwe weha tîne ziman: "Rojên herî nexweş ên jiyana min roja bihîstina nûçeya şehîdketina pêşmergên partiyê û li serveyî hemûyan Dr. Qasimlo û Dr. Se'îd bûn. Ew roj bi qasekî nexweş bûn ku niha jî hekî tên bîra min, dilê min giran dibe".

Tebîbe Xosrewî bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: "Ez biçûktir ji vê yekê me ku peyamê ji jin û keç û dayîkên Kurdistanê re bişînim, lê tenê vê yekê dibêjim ku azadî û wekhevî mafê her mirovekî Kurd e, û bi baweriya min ev mafê han nahê bidestxistin heya ew texa civaka Kurdistanê bi xwe çalak nebin, û hewla perwerdekirina nifşek nû bona garantîkirina pêşeroja civaka me nedin".



## Kedkarên erzan û bêdeng





**Nîştiman Rûhanî**

Destpêka meha Gulana her salekê bîranîna qata kedkaran. Ew zêdetirîn rêjeya hêza mirovî û di heman demê de, bêpartirîn texa her civakekê ne. Di salvegera roja cîhaniya kedkaran dio Îranê de, tu tiştek dilxweşkewr ji bo kedkaran nine,û berdewam pêvajoya bûyeran û nûçeyan li ser rewşa kedkaran roj bi roj be rbi xirapiyê ve diçe. Rewşa xirap ya aborî û tehrîm zêdetir ji her texekê pêsîra kedkaran girtiye.

Jin û bi taybetî jinên kedkar berdewam zulmeke zêdetir li wan hatiye kiirn, û berdewam hewl dane ku dengê nerizayetiyê bilind bikin. Destpêka nerarîbûna wan, vedigere berî meşên kedkarî di sala 1886'an. 8'ê Adara 1875'an bîrhînerê xebata jinên kedkar e bi armanca eşkerekirina nerizayetiya xwe derheq rewşa xirap ya cihê kar, û demên zêde yên kar, û heqdestê kêmtir, nebûna tu hewcehiyek ku jinên kedkar neçar bûn bona bijîva jiyana malbatên xwe kar bikin ew jî di rewşên herî dijwar de.

Jinên kar texa herî belengaz û zulmlêkirî ya Îran û Kurdistanê ne. Bi bboneya roja cîhaniya kedkar hewce ye ku em avriyekê li wê texê bidn ku beşeke zêde ji hêza kar pêk tînin, û ew mafên ku ji bo kedkaran dibe hebe, ji bo wan rewa nahê dîtin û heya wekî kedkar jî nahêne hesibandin. Jin bi karkirina di akrgehên mezin û biçûk de, kûrexane û kargehên ristin û çinînê, û herwisa karê di mal de, berbirûyê ferq û cudahîdanînê dibin, û heya tu cihek di yasayên Îranê de tunînin.

Yasayên kar di berjewendiya wan jinan de jî nine ku bi awayekî fermî wekî kedkar kar dikin, û zêdetir ji vê ku piştevanên wan bin, asteçngiyan ji wan re pêk tînin.

Beşa sêyemîn ji yasaya kar ya Komara Îslamiya Îranê taybet e bi karkirina jinên kedkar, lê ew yasaya nerasterast bêkarkirina jinan û hêlana wan e di nav malê de, û hêceta zêdetir dide xwediyê kar ku ji hêza jinan mifahê wernegrin. Lê dewleta Xatemî de bi sedema wan guherînkariyên ku di yasaya kar de hatin kirin, ew kargehên ku rêjeya kedkarên wê ji deh kesan kêmtir be, eva yasayên kar wan nagre.

Li gora serjimêriyan jî beşeke zaf ji jinên kar di wan kargehan de kar dikin, û lewra jî bêpar dibin ji bîme û xizmetguzariyên taybet bi kedkaran. Ew neçar bikarkirina di wan kargehand de ne, lê heqdestê kêmtir ji mêran werdigrin, bi hêceta lawaziya hêza leş, û eva ku mêr bijîva malbatê bi dest dixin.

Li gora serjimêriyên ne fermî zêdetir ji %80 jinên Îranî bêkar û di mal de ne, kêmtir ji %12 ji wan kar û pîşe hene. Rêjeya bêkariyê di Îranê de, di nav jinan de sê hemberî mêran e.

Rewşa xirap ya aboriya Îranê. Û daxistina gelek ji kargehên biçûk û mezin û zêdebûna rêjeya bêkariyê û jiyana bin hêla hejariyê, û jiyana qata kedkar û bi taybetî jiyana jinan yên kar di wî welatî de zêde kiriye, û bûye sedem ku serbarê hemû kêşe û astengiyan xeyrî karê zehmet yê malê di derveyî mal de jî kar bikin. Ew zêdet ji her texekê berbirûyê binpêkariyan dibin. Hewce ye ku çalakên mafên jinan û qata kedkar zêdetir avriyê bidin jinên kar, ji be rku hatine piştguhxistin. Mixabin heya niha hewla herî kêm hatiye dan bona baskirina ji kêşeyên wan jinên ku bi bêdengî hêz û şiyana xwe erzan difiroşin.

## Parêzgeha Urmiyê ji destê Kêmbûna xizmetguzariyên tendirustî de dinale

**Kêmbûna text û xizmetguzariyên tendirustî û dermnanî li parêzgeha Urmiyê, arîşe û kêşeyên zaf bo xelkê wî bajarî çê dike.**

Nûçegehaniyên ser bi rejîma Komara Îslamî ji zimanê parêzgarê wê parêzgehê ve ragehandin ku, serbarê xirabî û temenê zaf ê nexweşxaneyên wê parêzgehê, nebûna îmkanatên weke textên nexweşan, kêşe û giriftên zêde xistine ser riya xelkê wê pareêzgehê, û niha pitir ji 100 textên nexweşan ji wê parêzgehê re hewce ne.

Serhejmîr vê yekê derdixin ku heya dawiya sala 1394'an, parêzgeha Urmiyê hewceyî bi 5 hezar textên nexweşa heye.

Eva di demekê de ye ku bi sedema nebûna dahata hewce û xirabiya rewşa aloz û xirab a xelkê vê parêzgehê, hemwelatî tevî kêşeyên tendirustiyê berbirû dibin, û di piraniya keysan de jî kesên nexweş bi sedema nebûna alavên hewce ên pizişkî, canê xwe ji dest didin.

Kêşeya nebûna nexweşxane û îmkanatên dermanî û pizişkî di Îranê de, digîje ew qasê xwe, û di heman demê de rejîma Komara Îslamî ya Îranê li welatê Îraqê û li ser hisaba xelkê xwe, nexweşxaneyan çêdike.



## Rojnamegerî di Rojavaya Kurdistanê de

Piştî rojnameya “Kurdistan”, ku di 22’ê Nîsana 1898’an de, li ser destê Mîr Miqdad Midhet Bedirxan, li Qahîreyê derket, rojnamegeriya kurdî li Rojavaya Kurdistanê ji Kovara Hawarê dest pê kir.

Li Rojavaya Kurdistanê jî hejmarek ji kovar û rojnameyên kurdî derketin, li gel wan jî di van çend salên dawiyê de malper, radyo û televizyon ketin warê ragihandina kurdî de.
Di 15’ê Gulana 1932’an de, Kovara “HAWAR” ji aliyê Mîr Celadet Bedirxan ve, li Şamê derket. 57 hejmar jê derketin, û di 15’ê Tebaxa 1943’an de rawestiya.

1’ê Nîsana 1942’an, Kovara “RONAHÎ” ji aliyê Mîr Celadet Bedirxan ve, li Şamê derket. 28 hijmar jê derketin. Adara 1945’an ew kovar rawestiya. Yekemîn car bû, di dîroka rojnamegeriya kurdî de, ku kovareke kurdî bi wêne tê weşandin. 3’ê Gulana 1943’an Kamîran Bedirxan rojnameya “ROJA NÛ” li Beyrûta paytexta Lubnanê derxist. 73 hejmar jê derketin.

27’ê Gulana 1946’an “ROJA Nû” rawestiya. Rojnameyên ku ji aliyê Bedirxaniyan ve derketin mizgîniya damezirandina rojnamegeriya kurdî bûn. Herwiha ew şoreşeke serketî bû, di ziman, wêje, rewşenbîrî û rojnamegeriya kurdî de. Dîzayn û derhênana wan jî, li gorî pîvanên cîhanî yên wê serdemê bûn, ku tevî astengiyan, ew bi awayekî ciwan û bi rêkûpêk derdiketin.

Derbarê dîroka rojnamegeriya kurdî li Rojavaya Kurdistanê, nerînên cuda hene, ku her nivîskar û şirovekarek vê rojnamegeriyê bi awayekî dinirxîne. Hin dibînin ku rojnamegeriya kurdî, piştî qonaxa Bedirxaniyan, di warê parastina zimanê kurdî de, xwedî bandoreke erênî bû. Nivşekî din dibîne ku bandora vê rojnamegeriyê li ser zimanê kurdî bi awayekî nerênî bû, bi taybetê ku ev rojnamegerî, piştî vê qonaxê, bi zimanê erebî derket.

Bi damezrandina yekemîn partiya siyasî ya kurdî li Sûriyê, rojnameya vê partiyê, sala 1958’an bi navê “DENGÊ KURD” derket. Bi sedema girtina serkirdeyên vê Partiyê, sala 1960’an, rojnameya “DENGÊ KURD” rawestiya, lê bi giştî ev rojname, bi nerîna hin çavdêran, ne li gorî pîvanên rojnamegeriyê bû.

Pûşpera 1968’an Kovara “GULISTAN” li ser destê Seydayê Cegerxwîn hate desrxistin.

Sala 1979’an, yekem hejmara kovara “Gelawêj” derket, lê bi sedema parçebûna El-Partî, “Gelawêj” bû du “Gelawêj”. Bi wateya ku bandora rewşa siyasî li ser rewşa rojnamegeriyê hebû. Lê ji aliyekî din ve jî, li gorî çavdêran, bandora rojnamegeriyê li ser rewşa siyasî hebû. Adara 1983 Kovara “STÊR” derket. Sala 1994’an ew kovar rawestiya.

Piştî Şoreşa Sûriyê jî rojnamegeriya kurdî li Rojavaya Kurdistanê nikarîbû bi azadî û serbestî berdewam bike. Adara 1989’an, Kovara “GURZEK GUL” ji aliyê herdu nivîskarên kurd Konê Reş û Ebdulbaqî Huseynî ve derket. Lê Tîrmeha 1991’ê Kovara “ZANÎN” derket.

Ligel kêmasiyan jî, rojnamegeriya kurdî bi demê re di pêşketinê de bû. Sala 1993’an Kovara “PIRS” kete meydana rojnamegeriya kurdî.




Lê her ew jî di heman rewşa rojnamegeriya kurdî de bû, ku astengî û kelem li pêşiya wê hebûn.

Hejmarek ji rojname û kovarên din belav bûn, weke kovara “Bihar”, ku tenê 7 hejmar jê derketin û sala 2002’an rawestiya.

Kovara “ASO” jî sala 1992’an ji aliyê Siyamend Îbrahîm ve derket.
Kovara “ZEVÎ” ku Adara 2001’ê ji aliyê Arşevê Oskan, Mihemed Îsa û Mîdasê Azîzî ve derket. Ew jî gihişte 10 hejmaran, lê sala 2003’an rawestiya.
22’ê Nîsana 2012’an jî Kovara “PÊNÛSA NÛ” derkeket.

Ji bilî van nimûneyan, bi dehan kovar, rojname û belavokên kurdî li Rojavaya Kurdistanê peyda bûn, herwiha malper û sayt jî ligel hin dezgehên radyoyê, roleke wan a berçav di vî warî de hebû. Gelê Kurd li Rojavaya Kurdistanê çavnihêr e ku rojnamegeriya kurdî bi rastî bibe desthilata çarem ji boyî ku bi rola xwe rabe, û peyama xwe bigihîne berdengên xwe.

**Çavkanî: Malpera Rûdaw**

## Gotinên Navdaran



**A: Firat Ceweri**

Jina herî baş ew e ku hê ji dayika xwe nebûye.

**Fîrdewsî**

Pênûs, di destê nêçîrvanê xam de, dikare bibe tîreke
ku hedefa xwe şaş dike.

**Baraccio**

Xwîna xwînrêjan ne pak e

**Baraccio**

Gul ji bo bêhndayinê, agir ji bo tînê, jin jî ji bo
bextiyarkirinê hatine afirandin.

**G. Gardony**

Tiştê ecêb li ba jinan, ne bêî wan, ne jî bi wan re
mirov dikare bijî.

**Byron**

Jina ku mirov dikeve dû, li ber çavên mirov wek
melekekê ye, gava mirov bi dest dixe, dawiya her
tiştî tê.

**Shakespeare**

## Sê berhem li ser enfalkirina Kurdan çap û belav bûn

Di 27’mîn salvegera jînosayda Kurdan di Başûra Kurdistanê de, sê berhemên han (Gelawêj, Hepse, Şemîle) ji aliyê Dezgeha Rewşenbîrî ya Cemal Îrfan û li ser hesaba Dr. Taha Resûl hatin çapkirin.

Ew sê pirtûk li ser enfala Kurdan di Başûra Kurdistanê ji aliyê nivîskarê Kurd Arif Qurbanî ve bi zimanê Kurdî, û zaravayê Soranî hatine nivîsandin, ji aliyê pêşmergeyê PDKÎ birêz Selîm Zencîrî ve, bo ser zaravayê Kurmancî hatin wergerandin.



# Zimanê Kurdî



Ez ser û çavên xwe dişom



Ez neynûkên xwe jê dikim



Ez porê xwe şe dikim



Ez derdora xwe paqij dikim

Li wêneyan binêrin û valahiyan dagirin !




# Tiştonek



A: Mahir Berwarî

1- Yê girêday qelew dibit, yê vekirî zeîf dibit.
- Qesra xodê danî, benî ya der lê vekirî. **Bersiv: Kulind**

2- Herec herec, her êkê 15 derec.
-Helec e malec e, bîst û pazd e derec e. **Bersiv:Kuncî**

3- Qotu qotu di destî da, singê sur e di pindê da. **Bersiv:Nuk**

4- Hespê sipiye, bijî şîn.
- Gayê dilo, heftê cilo.
- Ho kilo, heft qat cilo.
- Ser seyd e, şaşik şîn. (* kesik)
- Li bin erdî pata dikit.
- Goka mina sor, têde hene heft çermên spî bi dor.
- Gayên nin e, sor hen e, heft çermên wan hen e, tu dizanî ew çi ne? **Bersiv:Pîvaz**

5- Mamkê mino, mamkuk e, ya bi kiras û dersuk e, navê wê ziçepuk e.
- Babê te yê mirî, di 7 mêze werkirî, serê girre kêra kirî.
* Nêzîkî meteloka mesîn û hêkê ye.
* Pîvok: giyayeke. **Bersiv:Pîvok**

6- Kumê hûtik, tije nûtik.
- Kumê hezî tije derzî.
**Bersiv:Hejî**

7- Impîlê darîn e, ewil tal e, paşê şirîn e. **Bersiv:Hirmî**

8- Heko yê biçûk rihêt wî di spî ne, heko yê mezin rihêt wî di sor in, heku yê pîr, rihêt wî reş dibin. Bersiv:Dirrî

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

Agirî

◆ Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (253)

## Mifaha piyazê bo bijankên çav

**Bijankên dirêj dibin sedema vê ku çavêm mirov balkêştir bin, û hûn jî dikarin bi vî awayî piyazê bo dirêjkirina bijankan bi kar bînin.**

Hindik piyazê têkilî dû kewçikên rûnê zeyt bike, û du heya sê deqeyan biqelîne, û piştre her roj lokeyekê di nav vî rûnî bide, û bijankên xwe pê çewr bike, lê dibe agehdar bin ku pêkatiya piyazê neçe nav çavên we de.



Herwisa rûnê badamê jî bo dirêjkirina bijankan baş e, hûn dikarin rûnê badamê tevlî şîr bikin, û bi lokeyeke paqij bijankên xwe ter bikin.

**Çavkanî: Donazine**

## Mirov di vî temenî de zaf hîs bi janê dike

**Vekoleran di zanîngeha Aksforda Birîtaniya eşkere kirin ku zarok piştî jidayîkbûnê zaf hestiyar in bi janê, bi awayekî ku janbir jî bandorek baş nabe bo leşê wan.**

Nojdar bo çareseriya jana zarokan di temenê sava de, wan dermanan bi kar tînin, ku demarên xaneyan bîstekê sirr dikin, lê tevî vê jî bi qasî %60 ev dermanane jî bandorê li ser zarokan nakin, û hîs bi janê dikin.

Hesteverên zarokan bo janê di dema jidayîkbûnê de çar qat ji mirovên bi temen û pêgihîştî zêdetir e.



## Nihêniyên Facebook'ê

**Piştî Googlê, Tora civakî ya Facebook'ê, duyemên malpera cîhanî ye ku hejmareke zaf xelk seredana vê malperê dike, û di pişt vê tora civakî de çend nihênî û zanyarî hene.**

1- Sedema hilbijartina rengê şîn bo vê malperê, vedigere bo wê nexweşiya ku kesek bi navê Mark Zokirbêrg pê ketiye, û bi her du rengên kesk û sor têk diçe. Her ji ber vê yekê rengê Şîn hilbijart.

2-Di rojê de 600 hewl bo hekkirina ekawint û rûpelên facebook'ê têne dayîn.

3-Di sala 2011'an de, yek li ser sê ji dosiyeyên cudabûnê di Amerîkayê de peyva "Facebook"ê têde bûye.

4-Nêzîk 30 milyon kesên koçkirî di facebook'ê de ekawint û rûpel hene.

5-Mark Zokrbêrg, yekem kes e ku kes nikare daxwaza wî ya hevaletiyê li facebook'ê de wernegire.

6-Mark Zokrbêrg, di mehê de tenê 1 dolarî werdigire.

7-Di sedê de 9 ekawntên facebook'ê wehmî ne.

8-Hejmara bikarhînerên facebook'ê li Amerîkayê, ji hejmara beşdarbûyên dawî hilbijartinê zêdetir bû.

9-Her tiştek ku tê nivîsandin, heke parve jî nekî, diçe nava sêrvera sereke ya facebook'ê de.

10-Di rojê de nêzîkî 300 milyon wêne di facebook'ê de têne bilavkirin.

11-Di dema navbera demjimêr 1:00 heya 3:00 piştî nîvro de zaftirîn kes li ser facbook'ê ne.

12-Wêneya ektereke bi navûdeng Al Paçîno, yekem wêne bû ku li facebook'ê belav bû.w

## Di salekê de 61 rojnamevan hatin kuştin

**Ban Kî Mon serkreterê giştî yê Netewên Yekgirtî di daxuyaniYeke xwe de ku di roja cîhanî a azadiya rojnamevanan de pêşkêş kir ragehand ku, di sala derbazbûyî de 61 ronamevan hatine kuştin.**

Sekreterê giştî yê Netewên Yekgirtî herweha daxwazê ji deshilatê di hemû welatan de dike ku rêz û hurmetê ji rojnamevanan bigirin.

Daxûyaniya Ban Kî Mon di demekê de hate pêşkêşkirin, ku Rêxistina Peyamnêrên Bêsînor daxwaz ji Encumena Ewlekariyê kiriye ku, aliyên tometbar bi kuştin û îşkencekirina rojnamevanan li Îraq û Sûriye, biçin pêş dadgehê.

